Bidestveanîna mafên neteweyî yên gelê Kurd di çarçoveya Îranek Demokratîk û Federal de

Hejmar: 131
21'ê Adara 2010
Buha: 150 Tûmen

# agirî

Duheftînameya siyasî, civakî, çandî û hunerî

Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê diweşîne

## Newroza We Pîroz Be

Bi hinceta hatina buhara ciwan, xemilîna xwezayê, nûbûna salê û sembola Serhildanê, em Serbilindî, Saxlemî, Serwerî, Serbestî, Serkevtin, sersewzî û sersaxiyê dikin diyarî sifreya heftsîna malên we û dibêjin ku hemû rojên we newroz, newroza we jî pîroz.

**Desteya Weşana Agirî**

### Mistefa Hicrî:

# Pêşeroj Ya Me Ye



Bi helkefta sala nû ya Rojî û cejna netewî a newrozê, êwariya roja Şemiyê, 29'ê Reşemeya 1388'an, rê û resmek hêja û birûmet bi beşdariya endamên rêberî, Kadro û Pêşmerge û malbatên PDKÎ li binkeya Deftera Siyasî pêk hat. Rê û resm bi sirûda netewî a "EY Reqîb" û deqîqeyek bêdengî bo rêzgirtin ji canê pakiq yê şehîdên riya rizgariya gel û nîştimanê dest pê kir. Piştre birêz Mistefa Hicrî, Sekreterê Giştî yê PDKÎ'ê peyama newrozî a xwe pêşkêşî xelkê xebatkar yên Kurdistan û Îranê kir. Piştre çendîn sirûdên şoreşvanî û stranên fulklorî ji hêla koma hunerî ve hatin pêşkêş kirin. Beşa duyem ya rê û resmê ku li derveyî hola rû û resman birêve çû, hilkirin agirê Newrozê bû ji hêla rêzdar Mistefa Hicrî û Neşmîl Moradî, keça şehîd Qadir Moradî ve û rê û resma han bi guvend û dîlana pişikdaran li dora agirê Newrozê bi dawî hat.

Peyama Newrozî A Obama:

## Rejîma Tehranê riya dûrketin ji civaka navnetewî dimeşîne

R: 6




## YE'ê Xwazyarê Ragirtina Bilez A Sansûra Înternetê Û BelavKirina Parazîtê ji aliyê rejîma Îranê Ye

R: 6



## Peyama Newrozî A Mistefa Hicirî, Sekreterê Giştî Yê PDKÎ, Bo Xelkê Kurdistanê

# "Pêşeroj ya me ye"

**Hevwelatiyên birêz!**
**Xelkê azadîxwaz ên Kurdistanê!**

**Malbatên serbilind ên Şehîdan û zîndaniyên xweragir ên siyasî!**

Newroz, destpêka sala nû, bihara ciwan û, xemilandî, ji we xelkê Kurdistanê li her cihekê cîhanê, nemaze ji xûşk û birên me ên Kurd di Kurdistana Îranê de ku li newrozek din jî li êxsîriya destê rejîma dijî mirovî a Komara Îslamî de man, pîroz be.

Newroz, cejna netewî a Kurd û Îraniyan, destpêka salê û nûbûna xwezayê ye. Nêzîk bi 300 milyon kes ji netewên cuda cuda li seranserê cîhanê, nemaze di parzemîna Asiyayê de vê rojê bi rê û resmên cur bi cur û bi şadî û keyfxweşî ve pîroz dikin. Lewma îsal cejna newrozê ji aliyê saziya Netewên Yekgirtî ve weke cejnek navnetewî a cîhanî hat ragihandin.

Xêncî nûbûna xwezayê, li gor gotinek efsaneyî, newroz roja serketina Kaweyê Asinger bi ser Zuhak de ye.

Di vê Efsaneyê de, Zuhak paşayek bêrehm û zordar bûye ku hemû rojê mêjiyê du xortan, dikire xwarin ji bo her du maran ku li ser milên wî şîn bibûn, heya dema ku kaweyê Asingir ku kurê wî jî her bi vî terzî hatibû kuştin, xelkê nerazî ji Zuhak, nemaze yên ku zarokên xwe bi vê egerê ji dest dabûn, kom kir û êrîş kirin ser Zuhakê zalim û dem û dezgehên wî têk dan û bi vî awayî canê xortên din rizgar kirin û bi xwe dewletek dilxwaz ava kirin.

**Xûşk û birên rêzdar!**

Sala 1388'an, salek pir ji êş û azar û qurbanîdan ji bo xelkê Îranê bû. Di vê salê de xelkê Îranê zêdetir ji salên derbazbûyî hatine kuştin, hebskirin û bêhurmetî bi wan hatiye kirin. Sedema vê yekê jî vedigere ser domandina berxwedanî û berevaniya xelkê Îranê ku her ji destpêka desthilata Komara Îslamî, ji aliyê azadîxwazên Îranê bi dijî vê rejîma pawanxwaz û dîktator dest pêkiriye, û piştî maşkanêya hilbijartina gera Dehem a Serkomariyê di Gulana sala 1388'an de gihîşte kupika xwe. Xelkê nerazî ên Îranê ku ragihandina encamên binav hilbijartinê kiribûne hêcet, li refên çend milyonî di Tehran û çend Parêzgehên din ên Îranê de hatine ser şeqaman û bi terzek aram û hêminane nerazîbûna xwe derheq encamên hilbijartinê diyarkirin. Ji vê rojê ve heya niha ku ew berevaniye dom dike, bi hezaran kes ji xelkê nerazî hatine kuştin, zîndanîkirin, îşkence û bêhurmetî bi wan hatiye kirin yan neçar mane bona rizgariya canê xwe, mal û warên xwe bi cih bihêlin û ber bi welatên din koç bikin.

Di Kurdistanê de ger em bi awayek Rêjeyî hesêb bikin, di wê heyamê de hejmara kesên kuştî, darvekirî, birîndarbûyî û yên ku li bin îşkencê de ne û yan di zîndanan de ne, zêdetir ji netewên din ên Îranê ye.



Tepeserkirina xelkê Kurdistanê ji aliyê rejîma Komara Îslamî a Îranê ve, îsal li gor çend salên derbazbûyî de pirr zêde bûye.

Serbarê wan hemû cinayetan, dîsan cihê keyfxweşiyê ye ku encama wan hemû gorî, xwîn û rondikan heder neçû û sala 1388'an salek pirr destkevt ji bo bizava azadîxwazane a Îranê û şermzarî û rûreşiya rejîma Îslamî bû. Ger rêberên bizava Kesk hemû hewlên xwe dan, daku îznê nedin xelk di çi xwenîşandanan de dirûşmên dijî rejîmê nedin û ew gotina bi nav û deng a Xumênî ku dibêje "Komara Îslamî ne peyvek zêde ne peyvek kêm", lê di dawiyê de xebatkarên azadîxwaz û nerazî ji desthilata desthilatdarên çeng bi xwîn ên Komara Îslamî, pîrozî û qodsiyeta direvîn ya rejîmê têkşikandin. Li cihê Komara Îslamî, silogana Komara Îranê da, hewar û gaziya cudahiya dîn ji siyasetê dan wilayeta Feqîh bi tewahî red kirin û bi vî awayî ew stûnû bingehên serekî ku rejîm li ser hatibû damezrandin, yanî Bingehîn û Wilayeta Feqîh lerzandin. Berdewamiya vê pêvajoyê bûye sedema pêkanîna valahiyeke mazin di refên melayên desthilatdar de, valahiyek ku heya niha bi vî awayê eşkere nehatibû dîtin. Rejîmê tev şiyana xwe xiste rojevê da ku bi darê zorê û tirsandinê, aramiyek nisbî vegerîne welat, lê li darxistina rê û resmên Kule Çarşemî ya dawiya salê, nîşan da ku hewlên rejîmê bêencam bûne, tevgera radîkal û dijî Komara Îslamî roj bi rojê di geşekirinê deye. Ji aliyê din ve ew zext û givaş bûne sedema nerazîbûna civaka navnetewî û protestokirina zêdetir ya Komara Îslamî.

**Xelkê têkoşer ên Kurdistanê!**

Bi vî awayî em di demekê de pêşwaziya sala 1389'an dikin ku pîrozî û qodsiyeta rejîma paşvero ya Komara Îslamî zêdetir li hemû demekê şikestiye û stûn û bingehên wê ji ketine lerzînê, yekparçeyî têkçû ye û di sala nû de dê bi dehan pirsgirêk û tengasiyên çavnihêrî kirî yên din ber bi rû bibe Li hember de hêzan têkoşerên riya rizgarî ji destê zulma rejîmê û yekgirtîbûna wan, berevajî hêviya desthilatdaran di berfirehbûnê de ye, hêviya serkevtina yekcarî, qahîmtir ji derbazbûyî ye.



Bê guman hemû ev destkevtane û zelîl bûna rejîmê, berhema xwîn û xebata xortên biwêr û netirs yên welat e ku di heyama 31 salên/ rabihorî de ber bi rûyê hêzên pir çek yên rejîmê hatine û bi hezaran kes ji wan di girtîgehên rejîmê de ne û di rojêan cejnê de ji pexela germ ya malbatên xwe û şadiya newrozê hatine bêparkirin, Lê roj bi rojê pêtir li ser mafên rewa yên xwe ku hiloşîna rejîmê û avakirina hikûmetek demokratîk li ser xwast û îradeya xelkê be, rijd in. Lewra em ji dil ve pîrozbahiyên xwe pêşkêşî wan girtiyên siyasî dikin û dibêjîn pêngavên we xurt, baweriya we qahîm û riya we jî berdewam be, xortên Kaweyê Hesinger ku netirsane îrade ya we ya herifandina koşka Zujhakên serdem roj bi roj zêdetir xurt dibe.

Me jî di Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê de hêviyek geş heye bi deskevtên zêdetir bo neteweya xwe di sala nû de û bi baweriyeke mezin berê xwe didin sala 1389'an, bo qahîmkirina xebat li dijî rejîma dijîgelî ya Komara Îslamî. Têkoşerên demokrat bi kadro û pêşmerge û tev alîgirên xwe ve, xwe bi hevçeper û hevxebatê hemû wan têkoşeran dizanin ku bi armanca pêkanîna hikûmetek demokrat û pêşkevtî de pêngava dawêjin.

**Pêşeroj ya meye.**

**Car din Newroz û sala nû ji we pîroz**

# Daxuyaniya Deftera Siyasî Bi Hilkevta 8’ê Adarê

Lİ bîranîna 8’ê Adarê, roja navnetewî a jinan de, civaka cîhanî û hogirên azadî, dadperwerî û berevankarên mafê mirov û bi taybetî yên jinan, ber bi vê roja dîrokî ve diçin û bi awayên cur bi cur bi pêkanîna civîn, semînar û xwenîşandan û ... rêzê ji vê roja dîrokî û pîroz digirin û bas ji xebata pir evraz û nişîv a jinan li hember zulm û zorî û çirijandin û newekheviyê dikin û deskevtên xwe di vê xebatê de bilind dinirxînin.

Deftera Siyasî ya partiya Demokrat a Kurdistana Îranê, bi boneya vê roja dirokî ku hawrîdaneke ji xebata wekhevî xwaziya jinan, pîrozbahiyên herî gerim yên xwe ji hemû jinên cîhan, Îran û Kurdistanê dike û hêviya serkevtinên zêde li xebata dijî kevneperestî, dîktatorî, newekhevî û gihîştina wan bi mafên însanî û siyasî ji wan re dixwaze.

Di sala 1911’ê ve ku 8’ê Adarê di asta navnetewî de bi fermî weke roja jinan hat naskirin, nizîk bi 100 sal derbaz dibe, di wê heyamê de jinên mafxwaz li seranserê cîhanê bi berdewamiya li xebata bo gihîştin bi azadî û bexteweriyê, karîne biwêrane berevaniyê ji mafê xwe bikin û di warê siyasî, abûrî û civakî ve pêşkevtinên berçav bidest bixin. Wan di wî heyamî de ji hemû derfetan mifah standine bona we ku şiyan û karînên xwe nîşan bidin û bi taybetî di welatên ku jin weke mirovek xwedî maf dihê hesibandin di warên siyasî, civakî û abûrî de xizmetên mezintir bi civaka xwe û cîhanê bikin.

Lê mixabin hêla hejmarek zaf ji jinan di dinyaya îro de di bin barê zulm û stema çend beraber de dihên pelixadin û ji hemû mafên mirovek vî serdemî, bêpar in.

Eger hizra paşketî û sedsalên navîn, ferq û cudahî danan û nexwandewariyê weke qapûsekê bal bi ser beşek zaf ji civaka cîhanê de girtiye, cihwarên wan diyardeyan li ser jinên wê beşa cîhanê de, pir zêdetir ji mêran e ku rêjîma kevneperest û mirovkuja



Komara Îslamî ya Îranê bal bi ser de girtiye û bi birêvebirina hin ji yasayên berteng, pêş ji her cur xebatek mafxwazane û dadperwerane digre, jin berçavtirîn qata vî welatî ne, jin, bêpartirîn û maf pêpeskiritirîn pêkhatiyên vî welatî pêktînin, bi awayên hovan tên azar û îşkencekirin û bêhurmetî bi maf û kerameta van tê kirin, lê bi xweşî ve jinên azadîxwaz û mafxwazên welatê me, digel wê ku bi zulm û zoriya ku ji aliyê vê rejîma paramayî ve pêre berbirû dibin, lê jêhatî bi xweragirane ji beramber de rawestane û li çepera berevanî kirin ji azadî, demokrasî û dadperweriyê de nîşan dane ku ne bi tepeserî, azar, îşkence û kevirbaranê û ne jî bi sepandina hukmên diji mirovane, nikare di vê xebata pîroz de pêgavên wan sist bike. Bi vê qurbanîdan û cangoriyên ku jin û keçên azadîxwaz û mafxwez yên welatê me bi awayên cur bi cur weke sazdana kampayna yek milyon wajo, xwenîşandanên berîn û beşdarîkirina bebiçav di bizavên nerazîbûnên vê dawiyê û bi dehan helwestên biwêr û cesûrane bûne beşek çalak ji proesa demokrasîxwazî û wekhevîxwazî a welatê me.

Jinên kurd jî her ji berê ve nimûneyên berxwedanî û berhingariya bi dujminên maf û azadiyên xelkê kurdistanê bûne û serbarê berevanîkirin ji mafên civakî ên xwe,rola pêşeng li çepera Pêşmergatiyê û berevanî ji netewe û niştîmana xwe de lîsine û li xebata siyasî, medenî, çandî de karîne piştîvanek bihêz bin bo bizava Milîdemokratîk a xelkê kurdistana Îranê. Dîrok bi şanazî ve bas ji vê xebata wan dike, nivîsandina çendîn bas û babetên dîroknivîsan û belavbûna zaf dukumentên girîng ên rojhelat nasan, vê rastiyê hom diselimîne. Bi taybetî piştî avabûna Hizba Demokrat a Kurdistanê û pêkhatina Komara Kurdistanê derfetek Siyasî a jêhat û guncaw bo xebata jinan di karûbarên siyasî de çêbû û bi nêrînên Pêşkevtî ên vê hizbê li serdemê Komara Kurdistanê de, jinên Kurdistanê bo cara yekemîn karîn saziya xwe pêk bînin. Di wê demê ve heya niha jinên Kurdistanê ji xebat jibo misogerbûna mafên civakî ên xwe û bidestxistina mafên siyasî û netewî ên xwe berdewam bûn. Her ew xebata pir ji şanazî a wan e ku niha bûye beşek ji tevegera mafxwazî a jinan di asta cîhanî û bûne bi endama Entirnasyonal a Sosyalîstî a jinan û rêz ji xebata wan tê girtin û her sal ji ber xebata pîroz a wan ji aliyê kor û komelên mirovhez ve tên xelat kirin.

Hizba Demokrat a Kurdistana Îranê, carek din piştgiriya xwe ji bizava wekhewîxwazî a jinan radigehîne herwiha roja 8’ê Adarê ji hemû jinên cîhan, Îran û Kurdistan, bi taybetî ew jinên azadîxwaz yên Kurdistan û Îranê ku niha bi tawana wekhewîxwaziyê di girtîgehên rejîma Komara Îslamî de ne, Pîroz dike û hêviya serketina zêdetîr jibo wan dixwaze.

Pîroz be 8’ê Adarê, roja navnetevî a jinan

Serkeve xebata jinan di pêxem mafên rewa ên wan.

**Partiya Demokrat A Kurdistana Îranê**

**Deftera Siyasî**

**16’ê Reşemeya 1388’ê Rojî**

**07. 03. 2010’ê Zayînî**

# Pîroz Be Hilbijartinên Gera Duyemîn A Perlemana Îraqê

Hilbijartinên gera duyemîn a Perlemana Îraqê, piştî hiloşîna rejîma Beis, sibêdeya roja Yekşem, 07.03.2010’an destpêkir û demjimêr 5ê êwariya heman rojê bidawî hat.

Di wê hilbijardinê de zêdetir ji 300 lîste û qewareyên siyasî û hejmarek ji kesyetiyên siyasî di rewş û atmosferek azad û demokratîk de bi hev re ketne rikeberiyê da ku bikaribin di nava nêzîk bi 6000 berbijêran de 325 nûneran bişînin Parlemana Îraqê. Di her sê Parêzgehên Kurdistanê de jî, 16 aliyên siyasî ku 600



berbijar bi xwe ve girtibûn, di hilbijartinê de beşdarî kirin. Bi hezaran çavdêrên serbixwe, rojnamevan û aliyên siyasî, di navxwe û derveyî welat de zêrevaniya vê pirosê dikirin. Hilbijartin di demek diyarîkirî û li jêr çavdêriyek tund a ewlehî de birêve çû. Serbarê vê çendê ku di Bexdad û çend cihên din de teqîn hatin encamdan û hejmarek ji hevwelatiyên Îraqî hatin kuştin û birîndarkirin, lê dîsan xelkê Îraqê ber bi sindoqên dendanê meşiyan û di vê pirosê de bi berfirehî beşdarî kirin. Li gor ragihandinên nefermî %62 ji xelkê wî welatî beşdariya vê hilbijartinê kirin. Beşdariya xelkê Herêmên Sunî akincî li gor hilbijartinên berê, duberamber bûye û li Kurdistanê jî zêdetir ji hemû herêmên din ên Îraqê xelkê beşdariya vê pirosê kirin.

Di vê hilbijartinê de hejmarek berçav ji dengderên deverên cuda cuda ên Kurdistanê ku bi dehan hezar kes dihatin texmînkirin, seba ewê ku navê wan ji aliyê Komisiyona Bilind a Hilbijartinan bo binkeyên dengdanê nehatibûn şandin, nekarîn di vê pirosê de beşdarî bikin û hinek şîkayetname jî ji aliyê hejamrek ji aliyên siyasî ve pêşkeşî Komîsiyona Bilind a Hilbijartinan hate kirin ku biryar e pêdeçûn bi ser wan de were kirin.

Serbarê wan hemû kêmasiyan, dîsan jî birêveçûna serkevtiyane a hilbijartinan di Îraq û nemaze di Kurdistanê de bi gavek erênî di pêşveçûna piroseya demokrasî di vî welatî û di gişt herêma Rojhilata Navîn de tê zanîn ku bêşik ev yeka bandorek erênî li ser welatên cîran jî heye.

Serkevtina vê pirpoesê wê demê zêdetir derdikeve ku em tevî hilbijartinên Nûnerên Şêvra Îslamî a Îranê û devra dehem a Serkomariya vî welatî bidin berhev.

Piroseya azadî û demokrasî di Îraqê de ku piştî hilweşandina rejîma Bees di sala 2003'an de dest pêkiriye û gav bi gav ber bi pêşve çûye heya ku gihştiye roja han û hilbijartina devra duhem a Parlema Îraqê, ezmenek girîng e ji bo gişt Îraniyan nemaze ew kesên ku pitir ji 20 salan e di çarçoveya rejîm Îslamî a Îranê de xebatê dikin daku bikaribin rê ji bo demokrasiyê vekin. Dîroka dûr û nêzîk û ezmûnên Îraqê vê rastiye îsbat dikin ku her wek di sîstema berê a Îraqê de tu hêviyek bona azadî û demokrasiyê nebû û piştî herifîna rejîma Sedam Husên, demokrasî di welatê Îraqê de cihgîr bû, di Îrana bin desthilata rejîma dîktator a Komara Îslamî de jî, tu guhertin û reform nahê encamdan û divê gişt hewl û xebat, di pêxem hilweşandina vê rejîmê de bên encam dayîn.

Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê, serkevtina vê hilbijartinê weke pêşveçûna demokrasiyê di vî welatî de dibîne û piştî dehan sal ji desthilatdaraiya dîktatoran, Îraq pê avêtiye nav ezmûna nû a demokrasiyê. Nemaze di Kurdistanê de ev piroseye di zirûfek pir hêmin û saxlem de birêve çû û ew yeka jî derfeta hilbijartina nûnerên dilxwaz ji xelkê re pêk anîbû ku ewa jî li jêr sîbera hikûmeta Herêma Kurdistanê de pêk hatibû.

PDKÎ bi vê hincetê pîrozbahiyê ji xelkê Îraqê bigiştî, nemaze xelkê Kurdistanê û herwiha Serkomarê Îraq û Serokê Herêma Kurdistanê dike û xwe di xweşiya vê serkevtinê de bi şîrîkê xelkê Kurdistana Îraqê dizane. Hêviya me serkevtina xelkê Kurdistana Îraqê di pêxema bidestxistina hemû mafên xwe ên berheq de ye.

**Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê**
**Deftera Siyasî**
**09.03.2010**

# Peyama Deftera Siyasî A PDKÎ, Bo Duhemîn Kongireya YXDKÎ

**Birêzan Nûnerên Kongirê!**
**Silavek gerim!**

Em lidarxistina duyemîn Kongireya saziya we a xebatkar, ji we nûnerên kongirê û ji rêya we jî, ji gişt xwendekarên xebatkar û çalakvanên rêya azadiyê pîroz dikin. Em hêvî dikin ku hûn di biencam gihandina armancên Kongireya xwe, şirovekirina bas û mijarên siyasî ên îroyîn û diyarîkirina bernameyek pêşkevtî û bersivder derheq rewşa siyasî a bizava azadîxwazane a welatê me de û herwiha xebata siyasî û sivîl a bizava demokrasîxwazane a xwendekarên Îranî û hilbijartina rêberiyekî kêrhatî û bişiyan, ku bikare biryar û raspardeyên Kongirê bi terzek serkevtiyane bi encam bigehîne, serkevtî bin.

**Nûnerên beşdar ên Kongirê!**

Hûn di zirûfekê de Kongireya xwe lidar dixin, ku welatê me seba siyaseta rejîma dîktator a Komara Îslamî a Îranê, di asta navxweyî û navnetewî de tevî aloziyek kûr berbirû bûye. Rejîma Îranê di heyamê desthilatdariya xwe de hemû hewla xwe ji bo tepeserkirin û bêdengkirina her cure dengek azadîxwaz yên bizava rizgarîxwazane bikar xistiye û gelek bêrehmane ketiye canê şoreşvanên welatê me û bi hezaran têkoşerên rêya azadî û demokrasiyê şehîd kirine yan neçar bi koçkirin bo welatên din kirine.

Êrîşa hovane a hêzên rejîmê di sala 1378' a Rojî de bo ser zanîngehê û kuştina xwendekar û xelkê azadîxwaz ên Îranê, piştî maşkanêya bi nav hilbijartina gerra dehem a Serkomariyê di Îranê de û dehan kiryarên dijî mirovane ên vê rejîmê, niha cihê bas û şirovekirina kom û civatên navnetewî ne. Di vê navberê de zext û givaşa rejîma Îranê bo ser xwendekarên Kurd ji xwendekarên din ên Îranê, pirr zêdetir û berçavtir bûye.






Her di midahê yek du salên derbazbûyî de hejmarek berbiçav ji xwendekarên biwêr û azadîxwaz ên Kurd ji aliyê hêzên rejîmê ve bi terzên cur bi cur hatine şehîd kirin û di navbera 21 kes ji ciwanên Kurd ku bi îdamê hatine mehkûmkirin, xwendekarek jî tê xûyakirin. Herwiha di navbera ew xwendekarên ku bi tawana mafxwaziyê di zanîngehan de hatine derkirin yan bo heyamekê ji domandina xwendinê hatine bêparkirin, xwendekarên Kurd bi terzek berçav di nav wan de tên xûyakirin.

Lê serbarê vê çendê jî bizava demokrasîxwazî a gelên Îranê û xebata siyasî û sivîl a gişt tex û qatên civaka Îranê, nemaze bizava xwendekarî di astek bilind de bona eşkerekirina siyasetên dijî mirovane ên vê rejîmê, bandora xwe hebûne. Ev bizave weke pêşengê xebata azadîxwazane di zanîngeh, nawendên kultorî û şeqaman de berbirûyê desthilata dîktatorî û hêzên tepeserkerên yên rejîmê bûne û herwiha hêza bizvêner a bizava azadîxwazane a Îranê ne. Di vê xebata siyasî û azadîxwazane de, xwendekarên Kurd pêşengê vê bizavê bûne.

Hewce ye vir de em îşare bi vê rastiyê jî bikin ku xwendekarên kurd xincî berbirûbûn û berxwedanî li hem ber rejîma Îranê bona bidestxistina azadiyê, mil bi milê xwendekarên din ên Îranê di çeperên din ên xebatê bona bidestxistina mafên netewî ên gelê Kurd di çepera pêşmergayetî, warên siyasî û warên din de rolek berbiçav lîstine û di xebata Netewî – Demokratîk a gelê Kurd de dîrokek pirr ji şanazî ji xwe re tomar kirine û rûpelên dîroka siyasî a Kurd û Partiya Demokarat a Kurdistana Îranê bi wan fîdakariyan xemilandine. Her ew beşdarî û kêrhatîbûna wan e ku bûye sebeb beşek zêde ji wan, rêberatiya gelê me dikin û biwêrane bona bidestxistina mafên berheq û dabînkirina azadî, demokrasî û fedralîzmê xebatê dikin. Bêşik ji bo pêşerojê, hûn jî weke xwendekarên xebatkar û şoreşvan, bi dewlemendkirina xwe bi çekên zanist û rewşenbîriyê, dibine strêrkek geş bona xebata gel û nîştimana me û dirêjederê rêbaza xebat û berxwedana rêberên bişiyan ên netewa me.

Bi vê hincetê, PDKÎ carek din piştewaniya xwe ji xebat û têkoşîna azadîxwazane a gişt xwendekarên Îran, nemaze xwendekarên Kurd û Yekîtiya Xwendekarên Demokrat ên Kurdistana Îranê dike û xebat û cangoriya wan berz û bilind dinirxîne.

**Serkeve Duyemîn Kongireya Yekîtiya Xwendekarên Demokrat yên Kurdistana Îranê**

**Bihiloşe Rejîma Komara Îslamî a Îranê**

**Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê**

**Deftera Siyasî**

**17.03.2010 (26.12.1388)**

**RONÎ**

Quncikek ji bo şiroveya bûyer û babetan ji xwendevanên "Agirî" re

**Ebdulla Hicab**



# ADAR, Heyva Bûyer Û Berxwedanê

Roja 8'ê heyva Adarê, ez bi biryar bûm ku nivîsa vê carê li ser roja cîhaniye xebata jinan ji bo wekheviyê binivîsim, lê beriya ku rêza yekê ye nivîsê bi dawî bê, hizr û xeyalan berê xwe dan Kurdistanê û hemû bûyer, berxwedan û serhildanên heyva Adarê ji ber çavên min rêz kirin.

Gelo li heyva Adarê emê Kurd bi çi awayî, li ku û basa çi û çi bikin? Basî xemla bi şepale deşt û dîmenên welatê têniyê azadiyê bikin ku di gel hindê ku ji şaristaniyan re dayikênî kiriye, jîn daye civak û gelan û serekaniya dewlemendiyê ye, lê îro bê îmkan û belengaz li bin lingên dagîrker û zordaran dinalîne? Basî reva zivistanê û vejîna xwezayê bikin? Basî serhildan û pêşveçûnên Tevgera azadiyê bikin an basî êş û elemên xelkê xwe? Li ku destpê bikin û qişeta halê xwe bi çi bi dawî bînin? Basî berxwedana mezine hemû deşt u dol û deverên welat ji Mihabad a landika Komarê re bigre heya bersinga bi gewhere Botan a dîrokî, an lehiya raperîna Raniye ya bûka germiyan heya Behdînana maka Kurdayetiyê bikin? Qala hawara her saleye Ameda tev coşa azadiyê bikin an basî birînên Helebçe ya ji huner û hebûna Kurd re dayikênî kirî, basî dilopên xwînê ku ji laşê Sinê herikîn bikin an qala serhildana Qamîşlo? Basî bêhna çikyaiye Pêşewa yê pîroz li bin benê îdamê li ser sêdare ya bêdadiyê bikin an Gule Newrozên şeydayê tava buharê bi bîr bînin?

Adar, heyva serhildan û bilindbûna xebata ji bo azadiya niştîman e. Lewma bûyer û berxwedanên herî bi bandor di dîroka Kurdistanê de, di heyva Adarê de hatine qeyd kirin. Êdî Adar bûye dîroka berxwedana Kurdistanê û hemû salan heyva Adarê belgeyên nû di berperên xwe de tomar dike. Ji darvekirina serok u rêberan re bigre heya komkujiya xelkê medenî, kes li Kurdistanê li meha Adarê ji zulm û çavsoriya deselatdaran bêpar nebûye. Lê di heman demê de jî tu gav dijminên mafên gelê Kurd nekarîne di heyva Adarê de bi xeyalek asûde li Kurdistanê balgiyê xatircemiyê danên bin serê xwe.

Adara sala 1947, dema ku paytextê birîndare Kurdistanê Mihabada bi keder li benda çirûskên tava biharê bû, şahê Îranê benê sêdareyê kire diyariya Newrozê û şeva 31ê Adarê Pêşewayê mezin ê Kurd, Qazî Muhemed û 2 Wezîrên Kabîneya Kurdistanê li sêdarê dan. Mebesta rêjîma Îranê li şehîd kirina Pêşewa bi tenê 10 roj piştî Newrozê ev bû ku bi şikandina Komar û ji nav birina sembola azadiya Kurd re hêviya vejiyana neteweyî jî li Kurdistanê bi yekcarî bişkêne. Bi awayekê ku her sal, dema nîşaneyên vejînê li xwezayê derdikevin, êş û azarên dîroka hatî tarî kirin, zêdetir gelê Kurd ji bîra azadiyê bi dûr bixe.

Lê sal hatin û çûn û berxwedana netewea Kurd berdewam bû. Kurd u Kurdistan bi êş û azar û bi birîna kedar be jî, lê her bi serbilindî man. Şahê Îranê û rêjîma wî bi rezîlî ji dîrokê hatin reş kirin. Kurdistanê li ser mezarê Pêşewayê xwe ala vejînê hilda û dubare serî rakir. Her çend ev bêhna azad û hewayê azadiyê tenê demek kin jiya, lê dîsan Kurdistanê hebûna xwe nîşan da.

Ev car, rêjîma Komara Îslamî şaşka cehalet û zordariyê ê kire cîgirê tacê zulmê. Di rojên Newroza sala 1979'an de rêjîma nû ya Îranê, tenê 40 rojan piştî ku hate ser kar bajarê Sine kire qada xwînê û bi sedan jin û zarok û xelkê bê berevan da ber gule u topan. Newroza bi xwîne Sinê, destpêka berxwedana netewa Kurd di qonaxa nûye xebata neteweyî de bû. Dubare heyva Adarê bi xwîna gelê Kurd hate xemilandin û xwezaya keske welat bi dilopên xwînê rengîn bû, lê dubare ala berxwedanê hate hildan.

Tenê 9 sal piştî ku Newroza bi xwîne Sine berperên dîroka Kurdistanê sor kir, li aliyê din ê sinûrê ku ne bi hez û ne jî bi xwesteka Netewa Kurd hatiye danîn, ev car li sala 1988'ê li başûr bajarê Helebçe kete ber hêrişa bi jehr. Rêjîma Beis li Îraqê li qonaxa dawiye şerê bi Îranê re, bi gazên kîmyawî ji esman re êriş kire ser Helebçê û di demek kin de bajar di nava gemara jehriyê de fetisand. 16ê Adarê, tenê 5 roj beriya vêxistina agirê Newrozê, dû û dûmana jehrê erd û esmanê Helebçê tarî kir. Wê carê birînek bi jehr kete laşê bi azare welat, heya dîsan hêviyên pêşerojek geş ji netewa Kurd tarî bike. Lê dem hat û dewran derbas bû. Kula Helebçê kelî, û kelî heya bû volkana kîna gel. Tenê 3 sal piştî şehyana Saddam li ser laşê bi birîne Kurdistanê, serhildana bi heybete gelê Kurd yekem zengila herifîna wî lê xist. Di nava çend rojên bi coşe Adara 1991ê de, Helebçe û hemû başûrê Kurdistanê ji dagîrkeriyê rizgar bûn û ala azadiyê li beşa zore başûrê Kurdistanê hate hildan. Êdî Adar tevî şîn û şehyanên xwe jiyanek nû xiste demarên welat.

Amed a kela berxwedanê jî li êşên Adarê, sînguyê zulmê û hêviya berxwedanê bê par nîn e. Ev bi salane ku hemû heyvên Adarê, dilê Kurdisatnê, Amed bûye meydana serhildanên neteweyî û meşxela agirê Newrozê bi heybet bilind dike. Bi êş û azarên xwe re, her sal roja 21ê Adarê, Amed nîşaneyên azadiyê hil dide û dengê hermana neteweyek dîrokî diqêrîne.

Qamîşloka zincîr kirî jî hem ji êş u birînên Adarê û hem jî ji hêviyên azadiyê ku bi hatina Adarê re her sal zindî dibin bêpar nebûye û bê par nîne. 12ê Adara 2004'an û şehîdên serhildana Qamîşlo, her sal weke meşxelên ku riya têkoşîna gelê Kurd li wê beşa Kurdistanê de ronî dikin, tê bi bîr anîn.

Heyva tije bûyer a Adarê ji bo gelê Kurd bi heq weke heyva têkoşîna azadiyê tê temaşe kirin. Di wê heyvê de hemû dever u herêmên Kurdistanê ji aliyekê ve şahidê berxwedana nateweyî û ji aliyê din ve sehneya hewlên her aliye dijminan ji bo bêdeng kirina dengê azadîxwaziye gelê Kurd e. Lewma bi bê dudilî mirov dikare heyva Adarê weke heyva Kurdistanê bi nav bike. Ji ber ku serhildan, tev şikestin, azar, berxwedan, vejîn û hêviya azadiyê bi hev re di Adara Kurdistanê de dijîn. Di gel hemû êş û azaran, heyva Adarê her tim nîşeneya hermana netewa Kurd e û wê heta hetayê her wisan bimîne. Lewma Newroz, ne tenê weke nîşaneya Bihar û vejîna xwezayê hêviya jiyanê dide gelê me, belkî weke sembola berxwedana Kurdistanê jî, tava azadiyê bi xwe re tîne. Bi hatina Adarê re, xwîna nû dikeve demarên laşê bi hêrs û heybete Kurdistanê û hêviya pêşeroja ron xurt dike. Adar û Newroz li we hemûyan pîroz bin.

# Turkiya Û Şokek Din A Siyasî



Selîm Zencîrî

Dîroka mirovahiyê heya niha çendîn tawan û komkojiyên mezin li tênûsa xwe de toar kirine. Bi taybet li Sedsala 20'an de gelek bûyer û karesatên dilêş û xembar qewimîne ku ji hêlekê ve cihê heyrîmanê û ji hêla din jî bêrehmî û hovîtiya desthilatdaran nîşan dide. Niha ji bo wan tawanan, peyvek bi navê Jînosayd yan komkojî û qirkirin bikar tê ku zêdeyî nîv sedsalê ye ketiye nav ferhenga siyasî de. Weke Jînosayda Ermeniyan bi destê Osmaniyan, Holokast bi destî Naziyên Alman, Tûtsiyên Rowandayê bi destê "Hoto"yan û Helebce û Enfal jî bi destê rejîma Beis ve.

Ya ku niha mijara me ye, qirkirina Ermeniyan e li salên 1915- 1923'ê Zayînî bi destê Spaha Osmanî û Turkên Ciwan. Wê demê turkên Osmanî hevdem li gel xurt kirina îslama radîkal û fendemintalîzma Îslamî, siyaseta Panturkîsmê jî berfireh û digeşandin û armanca wan pêkanîna hikûmetek mezin û pan û berîn a turkî bû li rojavayê Anatolî ve heya deşta Turkistana Çînê. Wan li vê pêxemê de xwe ji encamdana tu neheqî, cinayet û tawanan neparastin.

Osmaniyan ji ber du sedeman dest dane komkojiya Ermeniyan:

**1:** Yekem eve ku Mesîhî bûn û serbarê hemû givaş, şidet, destdirêjî û cinayetan, lê dîsan amade nebûn ku dev ji ayîna xwe berdin û vegerin hembêza Îslamê.

**2:** Helkevta coxrafiyayî a Ermeniyan, weke dîwarek bihêz û qahîm li navbera turkên Osmanî û Turkên Qefqazê de cih girtibû.

Lewma jinavbirin û hiloşandina wî dîwarî, weke hewcehiyek acil li pêxem pêşvebirina armancên xwe de dizanîn. Her eva bû ku şerê yekem yê Cîhanî ew derfet da wan ku bi bername û kompiloyek darêtî, dest bidin wê tawana mezin ku bi 1/5 Milyon kes tê texmîn kirin û bi vê cinatetê jî, bûn bi nimûne û berjeng ji bo Naziyên Alman ji bo qir kirina Cihûyan li şerê duyem yê Cîhanî de.

Lê ya ku cihê heyrîmanê ye, ev e ku piştî borîna sedsalek bi ser wê Jînosaydê de, hêj tu yek ji hikûmetên li pey hev yên Turkiyê îtiraf bi vê tawana dijî mirovahiyê nekirine û daxwaza lêborînê jî ji gelê Ermen nexwastine. Her eva jî bibû sedem ku ji hingê ve heya sala 2009'an, cemeda navbera Ermenistan û Turkiyayê neheliyayî bimîne û Ermenistan serbarê daxwaza bi fermî naskirina vê komkojiyê ji Turkiyê, hêj sînorê navnetewî yê li navbera xwe û Turkiyê bi fermî nas nake û beşek ji Rojhilatê wî welatî jî bi Ermenistana Rojava dihesibîne. Lê eva salek dibe ku hêdî hêdî pêwendiyn wan asayî bûne.

Heya niha 21 welatan ew tawan bi jînosayd nasîne û daxwaz ji Turkiyê jî kirine ku wê tawanê bipejirîne Yekêtiya Ewropayê jî eva weke mercek ji bo endametiya Turkiyê li wê Yekêtiyê de daniye ku heya wê qetîamê bi fermî nenase, weke endam nahê wergirtin.

Her çiqas ku komek ji rewşenbîr û nivîskarên turk midehek berî niha li nameyek servekirî de daxwaza lêborînê ji gelê Ermen xwastin û bi wî karê xwe jî hêla sor a Turkiye bezandin. Sînorek ku berê li ser vê mijarê li dijî Orhan Pamok jî



doz hate vekirin û ew xistin bin lêpirsînan, herweha Hirant Dînk jî li ser hate teror kirin. Sînorek ku bal nasyonalîstên turk ve bi sivikatî, îxanet û bêhurmetî bi gelê turk tê hejmartin.

Lê ya ku niha li vê rewşa aloz, hestiyar û nearam ya Turkiyê de bûye sedema girnijîn, kelijîn, nîgeranî û hêrsa turkan û zexta wan jorde biriye, pesend kirina biryara bi jînosaydnasîna wê qirkirinê ji aliyê Komîteya Pêwendiyên Derve a Kongrêsa Amerîkayê ye ku bi 23 dengên ERÊ li hember 22 dengên NA de hat pejirandin û paşan jî bo pejrandina dawîn, dê bikeve ber raya Civata Giştî ya Nûneran û li egera pesendkirinê de dê dewleta Obama neçar û erkdar bike ku wê tawanê weke Jînosayd rabigehîne. Biryarek ku 3 sal berî niha Kongresê ji ber dijberiya Corc Bûş nepejirand, lê Obama li piropagandayên hilbijartina Serkomariyê de ew soz da xelkê Amerîkayê. Her piştî biryara Komîteya Pêwendiyên Derve ya Amerîkayê, Parlemana Swêdê jî ew tevkojî bi Jînosayd nas kir û hêrsa turkan zêdetir kir. Jiber vê biryarê jî Erdoxan serdana xwe ya 17'Adarê bo Swêdê betal kir.

Li hemberî wan du helwestan de, Turkiya serbarê vexwendina balyozê xwe li her du welatan de, herweha her yek ji Serkomar, Serok Wezîr û Wezîrê Derve jî bi cuda axaftinên bi gef û huşdar dan her du welatan û ragihandin ku ew biryar, dê tesîr û bandora nigetîv bike ser pêwendiyên wan bihevre û ew yek jî bi bê edaletî li ser dîrokê, berçav negirtina têdîtinên siyasî, tometbar kirina bê bingeh û li metirsî û xeterî xistina rêketinnameya aştî a li navbera Turkiye û Ermenistanê dan zanîn.

Ew biryara her du welatan, serbarê wê ku surpirîz û şokek siyasî ye bo Turkiyayê, herweha dê asta pêwendî û dîplomasiya wan jî bertengtir û bi sînor bike. Eva jî li haleke de ye ku niha hikûmeta Turkiyê ji çend aliyan ve li bin zext û givaşan de ye.

- Rewşa siyasî a hundirê welat nearam û heya qasekê tevlihev e.
- Bernameya Reformên Demokratîk a hikûmetê serî negirt û li vê derheqê de hikûmet li bin givaşan de ye bo Vebûnê.
- Tirsa Kûdetayên leşkirî her li holê de ye û çend rojan berî niha zêdeyî 50 jeneral û efserên payebilind yên Turkiyê bi tawana kûdetayê hatin girtin û destbiser kirin.
- Hewla reformên li Yasaya Bingehîn a Turkiyê de, bona wê ku xwe li gor pîvan û pirensîpên Yekêtiya Ewropayê de hevterîb û garantiya azadiyên pêtir bike, hêj çilû nedayî nîqaşek zaf li pey xwe re aniye. Çunku bi dijberiya xurt a sopa û nasyalîstan re berbirû bûye û ew wan reforman bi hewlek ji bo cihgîrkirina sîstemek olî li Turkiyayê de dihesibînin.

Bi giştî bi jînosayd nasîna wan tawan û cinayetên hov û dijî mirovahiyê, serbarê wê ku rêzgirtin e ji mirovahî û canê qorbaniyan, heya qasekê jî dibe rêgir û asteng li pêşiya desthilatên dîktator bona dubare nekirina tawanên bi wî awayî.



Peyama Newrozî A Obama:

## Rejîma Tehranê riya dûrkevtin ji civaka navnetewî dimeşîne




Barak Obama, serokkomarê Amerîkayê, salek piştî wê yekê ku destê dostatiyê ber bi rejîma Tehranê dirêj kirbû, roja şemiyê di duhemîn peyama newrozî ya xwe de ragihand ku rêberên rejîma Îranê riya dûrketin ji civaka navnetewî hilbijartine .

Di wê peyamê de hatiye: Herçend ku pêşniyaza me ji bo gotûbêjan tevî rejîma Tehranê her di cihê xwe de ye, lê rejîma Tehranê di yek sala derbazbûyî de, riya dûrketinê hilbijartiye.

Ligor ragihandinekê ku ji aliyê Koşka Sipî ve hatiye weşandin, Şerkomarê Amerîkayê li peywendî digel Îraniyan de, sûz daye ku rewşek wiha ji bo wan berhev bike ku bikaribin bi rehetî û bê sansor ji înternetê mifahê werbig rin. Navbirî herwiha got ku Amerîka hêviya pêşerojek geş ji bo xelkê Îranê û gihîştina wan bi mafên xwe dixwaze.

## YE'ê Xwazyarê Ragirtina Bilez A Sansûra Înternetê Û BelavKirina Parazîtê ji aliyê rejîma Îranê Ye

YE'ê li Biroksilê, ji rejîma Terhranê daxwaz kir ku bilezsansûra li ser înternetê û belavkirina parazîtê li ser kanalên esmanî bisekinîne. YE, herwiha ragihand ger rejîma Îranê vî karî neke, ew dê gavên micidtir li dijî vê rejîmê hilbigirin.

Yekîtiya Ewropayê herwiha nerazîbûna xwe derheq bêparkirina Îraniyan ji ragihandinên esmanî û înternetê ji aliyê Komara Îslamî a Îranê ve îlan kir.

YE, îşare bi qedexekirina hewcehiyên teknîkî derheq Îranê kir. Alavên ku rejîma Îranê bi bikaranîna wan, sansûrê dixe ser ragihandinên opozîsiyonî.

Ew weşanên ku rejîm parazîtê dixe ser wan, digîje 70 heya 80 radyo û televîziyonan.



Rojev

## Kuleçarşemiya Herî Ciyawaz Û Siyasî

**Arîn**

Kuleçarşemî yan Çarşeme Sorî yek ji wan ayîn û sunetan e ku bi salan e Îranî bi giştî û gelê kurd jî bi taybetî vê boneyê pîroz dikin. Kuleçarşemî, dawîn çarşemiya her sala Rojî ye ku bi wî navî tê naskirin. Dîroka vê rojê vedigere berî Îslam û heta Zayînê jî, ji hingê ve heya niha Îraniyan ew yek wekî kultorek parastine û her sal jî geştir ji caran pîroz kirine. Herweha heya niha tu hêz û desthilatekê li Îranê de nekarîne vê cejnê û bazdana ciwanan bi ser agir ji wan bistînin yan pêşiya birêveçûna wê bigrin. Lê piştî hatine ser kara rejîma Komara Îslamî li sala 1979'ê de, melayên tarîperest ku li rûyekî de bingeha hikûmeta xwe li ser esasa binav Îslamê avakirin e, tim hewil dane ku vê cejna kevnar ji nav bibin û li cihê wê de hin cejn û boneyên din cihgir bikin û her car bi hincetekê dixwazin vê cejnê kêmreng û pêşî ji birêveçûna wê bigirin, carna bi hinceta agirperestî, carna bi hinceta xeterî û metirsî bûna wê, carna ji ber hevdem bûna wê bi munasibetên dîn î û ....

Lê Kuleçarşemî ji bo xelkê û bi taybet ciwanan di nebûna azadiyê li Îranê de li cihê xwe de, ne tenê cejnek netewî ye, belkî weke derfet û fersendekê ye bo dijberiya bi rejîmê re. Rejîm û sîstemek ku alîgirê reşatî, kerb û kîn, xembarî û neriheti û dijî her terze keyfxweşî û ronahiyekê ye. Lê Kuleçarşemî ji bo xelkê nîşan û berjenga şadî, soratiya agir jî nîşaneya germahî, ronahî, enerjî, jîn û jiyanê ye. Tiştên ku Komara Îslamî eva 31 sal e ji gelên Îranê û bi taybet ciwanan standiye.

Niha ku serê 9 mehan e bizavên nerazîbûnê dijî vê rejîma hov dest pê kirine, êdî bone û merasîm jî li rojimêra Îranê de wateyek din peyda kirine û bûne bi hêcetek bona dijberiya bi rejîmê re. Li vê navberê de hikûmet jî dixwaze bi her awayekê be, van derfetan ji xelkê bistîne û radîkaltir û rijdtir ji caran bi wan re dilive. Lewma tirs û wehşeta ji xelkê nerazî, rejîm û desthilatdarên wê anî ser vê bawerê ku vê carê jî bi fend û fêlek din xelkê bixapînin û pêşiya birêveçûna vê boneyê bigrin. Her eva bû ku me dît Xamineyî, rêberê Komra Îslamî fitwayek li vê derheqê de da û ragihand ku "serbarê wê ku Kuleçarşemiyê tu bingehek şerîî nine, herweha dibe sedema zirar û fesadê ku hewce dike em xwe jê biparêzin".

Lê herkes dizane ku eva tiştek nine ku taze mirov hînî bibe ku ev boneya



mesebî û olî nine, lewma wekî xuya û eşkere ye tu sedem û hewcehiyek bi derkirina vê fitwayê, xincî tirs û lerza rejîmê ji nerazîbûnan nîne.

Lewma mirov dikare bibêje ku Kuleçarşemiya îsal bi çend ciyawaziyan ve bi nîsbet salên borî re biferq, siyasî û ciyawaztir bû:

- Cudabûna xelkê ji hikûmet û desthilatê. Çunku ji aliyekê ve desthilat bi hemû hêz û şiyanên xwe yên leşkirî ji aliyê dinê jî xelk û bi tayebt ciwan li hember hevdu çeper girtin û serbarê birêveçûna vê merasimê, dirûşmên dijî rejîmê û mirin ji bo dîktator li rex reqs û govenda kur û keçên netirs û şoreşgir erd û asîmanê Îranê tejî û heyand. Lewma ew fitwaya Wilayeta Feqîh her wekî wê bû ku Benzînê bi ser agir de bireşîne û gurrî û peşqela wê zêde û xurttir bike. Lewma boneya îsal rojek mezin û jibîrnekirî li dawiya sala 1388'ê Rojî de tomar kir û bi vê çendê NA yek din gotine rejîmê û fitwayên direvîn yên wan.
- Kuleçarşemiya îsal serbarê rewşa awarte û girtin, kuştin, îşkence, îdam, gef û tirs û xofên desthilatdaran, lê dîsan jî bi awayek girseyî birêve çû û dîsan bi qîrîna dirûşmên mirin ji bo dîktator, peyamek girîng û qahîm dane siyasetên hov, dijî mirovî û yên sedsalên navîn ku êdî ji bîr neke ku bi zext û givaş û çavsoriyan ve nikare agirê xwenîşandanan bitemirîne.
- Kuleçarşemiya îsal piştî heyamek kin bi ser bêdengî û arambûna bizavên nerazîbûnê û kontirol kirina wê ji aliyê rejîmê ve, lê carek din hêz, rih û qawetek din da ber tevger û xwenîşandanên xelkê bêzar bûyî ji sîstemê.
- Dîsan tirs û xofek mezin xiste nav dilê desthilatdaran û xew ji çavên wan herimand û ew meşrûîyeta mayî jî bire bin pirsiyarê.

Bi giştî agirê Kuleçarşemiya îsal metodek ji xebata bo azadiyê bû, xebatek ku cudahiyek pir mezin dixe nav mirovên aştîxwaz û evîndarên azadiyê li gel mirovkuj, azadîkuj, reşperest û dujminên şadiyê.

**Hucetul Îslam Seyd Ehmed Xatemî:**

## jinên bê hicab sivkatiyê bi nizamê dikin




Li gor ragihandina Îlna: Pêşnimêjê roja înê ê bajarê Tehranê tekez kir ku: Mercei, ulema, malbatên şehîdên nizamê û olperest ji wê rewşa têkdana nezm û rêk û pêkiyê di warê hicabê de nîgeran in.

Hucetul Îslam Seyd Ehmed Xatemî, ragihand ku dixwazim erkek olî bi cih bînim û di wê derê de jî tekez bikim ser rewşa hicabê di welat de, û rexne ji rewşa neparastina hicabê girt.

Wî got ku hin kes dibêjin hicab mijarek şexsî ye, rast e hicab meseleyek şexsî ye di malan de, lê dema hatin derve îdî mijarek şexsî nine.

Navhatî zêde kir ku welatê me ji hemû welatan bi hicabtir e, lê nabe em wê yekê berhev bidin, divê bizanin ku me welatek Îslamî heye û me pêtir ji 300 hezar şehîd dane heya ku Îslam bibe desthilat Her wiha wî got ku xwedê dipejirîne ku ragihandin û navendên zanistî di wî warî de karê xwe bidomînin û berpirs jî bigor wê yasayê kar bikin, çima ew yasaya ewqas baş niha mehtel maye. Herwiha zêde kir ku ew kêmahiyên ku hiucabê naparêzin bitaybetî di îdaran de, divê bi berpirsan bihê gotin ku destpêkê de û paşî jî miaşgirên we pêwîst e hicab biparêzin, her nebe ewên ku nanê nizamê dixwen, pêş ji nizamê venegerin.

## Bêrîvanê li roja cîhanî ya jinan da xwe şewitand



Avesta - Jineke 25 salî ya bi navê Bêrîvan, bi sedema nakokiyên malbatî, li 8 ê Adarê, roja cîhanî ya jinan da agir berda bedena xwe Li gor raporên bijîşkî yên Dihokê nêzîkî % 75'ê bedena wê şewitîbû, lewma jiyana xwe ji dest da.

Hevjînê Bêrîvan yê bi navê Ş.M.A di vî warî de ragihand ku jina wî xwe neşewitandiye, lê dema ku Petrol xistiye nava sobê de ew şewitiye.

Ji aliyeke din ve jêdereke nêzîkî malbata Ş.M.A. ragihand, berî du salan van her du kesan jiyana hevpar pêkanîne, lê berdewam bi hev re nakokî hebûn, lewre egera wê yekê heye ku jina wî xwe şewitandibe, ji ber ku di dema şewatê de bi tenê mêrê wê li mal bûye.

## Çalakeke Mafên Jinan Bi Tometên Nû Ve Berbirû Bûye

"Pexşan Ezîzî" çalaka xwendekarî û mafên jinan, di heftiya borî de piştî şandina wê bo Dadgeha Şoreş a bajarê Tehranê, tevî gelek tometên nû weke: peywendî tevî partiyên dijberên rejîmê, çalakiyên piropagandayê dijî rejîmê, komkirina wajo bi hêcetên nerast û ... berbirû bû.

Nûçegihaniya "HRANA"yê di vê derbarê de ragihand, Pexşan Ezîzî cuda ji nîşandana nerazîbûnê li cihê wan tometane, hemû tometên din red kiriye.

Hêjayî gotinê ye ku Pexşan Ezîzî di meha Çiriya Pêşîn a 2009'an de, piştî rêveçûna civîna nerazîbûnê bi hilkevta îdamkirina Êhsan Fetahiyan li zanîngeha bajarê Tehranê, hat girtin. Navhatî piştî du mehan di benda 209 a girtîgeha "Êvîn"ê a bajarê Tehranê de, bi tawana beşdarîkirin di civîna neyasayî de lêkolîn lê hat kirin û piştî lêkolînê, meha Şibatê bo heyamê 10 rojan dest bi gireva birçîbûnê kir.

# AXÎNEK KÛR

**Kewê zer**

Tiştên xweş di dinê de pir gelek in û rojên xweş jî her bi wî awayî. Lê hin tişt hene ku dema mirov dibîne yan dibihîze, hestek taybet dide mirov û heşên mirov ber bi gelek alî, dîtin û şirovan dibe.

Bûyera ku wan du heftiyên dawî de çêbû, piroseya hilbijartinên Îraqa federal bû û kurdistana başûr jî weke herêmek federal li wî welatî bi awayek bihêz beşdarî piroseyê bû û bi serkevtinek baş bi encam gihandin. Lê ewa ku ez dixwazim vir de bînim ber bas, ne mesela hilbijartinê ye, belkî piştî bi davîhatina piroseya hilbijartinê di rewşek hêmin û demokratîk de, ew şahî û keyfxweşî bû ku ji aliyê xelkê kurdistanê ve jibo encama wan hilbijartinan hat nîşandan û bo carek din derxist ku gelê kurd hêjayî xwe birêve biriyê û desthilatek îroyîn e, heman hesta netewî bandor li ser parçeyên din ên Kurdistanê jî çê kir.

Dema ku ciwanên Kurd li bajar û deverên kurdistana azadkirî de bi zimanê kurdî, bi cilûbergên kurdî û bi ahengên kurdî bitaybet jibo serkevtinek netewî dadikevin ser şeqaman û birînên kevnar ên xwe bi wî awayî derman dikin, tiştek veşartî nine ku ciwanên parçên din ên kurdistanê jî ev şahî di dilê wan de digere. Lê eger ez wê meselê hindek taybetîtir û yekalî bas bikim û bixwazim tenê bas ji hesta ciwanên Kurd li Kurdistana Îranê bikim, dikarim bêjim ku tiştek nine xêncî tevlihevbûna xweşî, şahî û hesretên di dil de mayî ku di encam de dibin axînek Kûr û eger bi eşkere jî bihê hilkêşan, eve hêcet ji wê baştir çênabe ku şeqamên bajar û deverên Kurdistanê bi xwîna ciwanên Kurd bihê xemlandin.

Eve axîna kûr her tenê jibo nebûna derfetên xwenîşandanan nine, belkî jibo jidest çûna fersendên karî, pêşketinên hizrî û bikar anîna şiyanên xwe di pêvajoya pêşketina welat û nebûna azadiyên siyasî û netewî...de ye, ku heya îran di bin desthilata zulm û stema dem biser çûyîtirîn rejîma cîhanê de be, gelên zulimlêkirî ên Îranê û bitaybetî ciwanên Kurd di birêveberiya welat, berbi pêşdebirina pêvajoya demokrasiyê, danana bingeha civaka sîvîl "ku yek ji xewnên ciwanan e" û bi giştî beşdarîkirin di piroseya gihîştin bi sîstemek azad û demokratîk di welat de, her û her dê sêwî bimînin.Çunku ev karê han piroseya piştî qonaxa standina mafên sereke ye, eger çi xweperwerde kirin bi awayek teorî esas e, lê ji bo misogerkirin û bicihgihandina poroseya han, tecrobe bihê kirin ku ev jî dem û zeman dixwaze.

Di rewşwk wiha de bitaybetî ku niha ragihandin desthilatek bihêz e û her bûyerek li kuncek cîhanê de biqewime, bi hêsanî û bilez dikeve ber dîtin û nerînên ciwanan û heşên van ber bi xeyalek kûr dibe.Lewma di demek wiha de renge ciwan nekarin bi bê rênmayî û alîkariya sazî û aliyên bi ezmûn di xebata siyasî de biryarek bi cih bidin, jiber wê yekê ye ku çarenivîsa xwe didin destê hêzên siyasî û şoreşgerên Kurdî. ev pêvajoya ku heya niha dimeşe û bi dana nirxên zaf û tirajîdîk lê dîrokek pir şanazî tomar kiriye.

Lê pirsa herî girîng ev e ku, erê gelo ev hêzên siyasî ên Kurdî dê ew hesta pîroz û paka ciwanan ber bi ku bibin? Erê gelo dê bikarin rojek wek 7ê adara îsal li ser şeqamên Hewlêr, Silêmanî, Dihok û Kerkûkê bi diyarî bo ciwanên bihest û hîvî pengurî ên Kurdistana Îranê bibin...?eva pirseke ku bi salan e serbarê xebatek dûr û dirêj û pir gorî, lê carê misoger nebûye û di vê rewşa hesas û hestiyar a Îranê de hewcehî bi yekdengî, yekêtî û yek helwestiya rêxistinên siyasî, bo hêzek bi heybet û biqawet li hemberî dujminê xedar de heye.

# Pirsek Veşartî



**Ceifer Mubeşirniya**

Pirsa madeyên hişber û bikaranîna van, pirsek sereke a civakî di wlatê Îranê de tê berçav û pêlek reş avêtiye ser jiyana xelkê ku gelek hêz û şiyan di civakê de ji nav birine, herwiha jiyana gelek malbatan herimandiye. Her di vê pêvajoyê de metirsiyek din a pir bandor û nerênî ku gefê ji pêşeroja civaka Îranê dixwe u bi curek ji curan winda ye, pirsa **bengdariya** jinan e bileze di welat de zêde dibe û di hin meselên civakî de, tesîrek nerênîtir ji bengdariya mêran heye.

Mifahstandin ji madeyên hişber bi awayên cur bi cur weke kirîn û firoştin, bikaranîn weke kêşan û xwarina wan madeyan, "tezrîq" kirin û... bi giştî di nav civaka Îranê de belev bûye, weke pirsek girîng, diyar û berçav e, lê tim bi awayek giştî li ser wê meselê bas tê kirin.

Eşkere ye ku her tex û qatek ji civakê rastî vê belaya malwêranker bib, metirsî û zirar bo hemû civakê heye û li vê navberê de jî raste ku hejmara mitadên mêr, pir zêdetir ji ya jinan e, lê eva ji bûye sedem ku bengdariya jinan wunda bimîne û lêkolîn û lêpirsîn jê nehê kirin.

Eger bas ji bikar anîna wan madeyan bikin û li kirîn û firotin"hûrde firoşî"a wan re dest pê bikin, piraniya karê han di malan de ji aliyê jinan ve tê encamdan, herçend ew pirs ji ber rewşa xerab a abûrî ve weke çavkaniyek serî hil dide, lê ew rewşa nebaş a abûrî jî nikare bibe sedemek di cihê xwe girtina hejmarek ji jinan dikare çi manayek hebe? Ev karê han jî wê yekê eşkere dike ku jinên motad nayên girtin bi armanca çaresriya wê pirsê, belko jinên sax û silamet bi tawanên cur bi cur ên direwîn tên girtin û di girtîgehan de tên motadkirin.

Lê cudahî a herî girîng û nerênîtir, ya îtiyada jinan ligel mêran ew e ku jin dayîk in û li gor çanda welatê Îranê, erkê perwerdekirina zarokan li ser milên dayikan e, lê diya moitad nikare pêşerojek geş ji bo zarok û civakê garantî bike. Çunku di hemû cîhanê de perwerde ya zarokan, bihêztirîn bingeha civakê ye.

Bas û şirove, herwiha belavkirina zanyariyên pêwîst û rewşengeriya li ser karên bêkêr di nav civakê de, bi taybetî banga micid jibo tekezkirin li ser



çareseriya taybetî û cuda ji her pirsek din ji bo meşa bilez a pêvajoya îtiyada jinan, yek ji xizmetên mezin bi mirovahiyê ye.

Ev banga ku ji aliyê gelek xelkê sivîl ve bo çareseriya pirsa îtiyadê tê kirin, nîşana vê yekê ye ku êdî xelkê tu hêvî û omîdek ji bo jiyan û ewlehiya civakî bi hebûna wê desthelatê nine û baş wê yekê dizanin ku rejîm, ne tenê hewl ji bo kêmkirina wê belaya mezin nade, belkî sebebkarê eslî yê wê kirîz û nexweşiya civakî ye, ku mirov dikare hejarî, bêkarî, givaşên siyasî û civakî û nebûna ewlehiyê bi çend nimûneyek ji hezaran nimûne ên din îşare pê bike.

## Navi Pillay: "Îsal jî 5000 jin ji ber sedemên namûsê hatin kuştin"



Bi Kêmî 5000 jin an ji ber "parastina namûsê" jiyana xwe winda kirine û ev hejmar ji aliyê YN'ê hatiye eşkere kirin.

Navi Pillay, Komîsera-mafê mirovan a YN, rapora xwe a salane li ser pirsgirêka jinên cîhanê ji bo konseya YN ê mafê mirovahiyê amade kir. Di vê raporê de wiha hatiye zanîn "Ev nirx nîşan dide ku ji sedî 30'a jinên cîhanê, di jiyana xwe de rastî lêdan, destdirêjî yan jî şidetên bi awayên dinê hatine.

Şidetên herî zêde di nav malbatan de diqewimin. Kuştinên namûsê yek ji wan şîdetan e ku di nav malbatan de pêk tê. Hejmara kûştina 5000 jinan diyar dike ku biçûk dîtineke ekstrem li ser jinan de heye".

Pillay wiha berdewam dike:

"Zagonê hinek welatan di cezakirinê de hêsanî û toleransê dide kuştina jinan. Lê, zagondanînê navnetewî bi vekirî û eşkere tîne ziman ku her welat berpirsiyarê parastina jinan ji biçûkdîtinê ne".

Mînakê kûştina jinan ji ber sedemê "namûs"ê li gelek deverên cîhanê heye. Lê bi taybetî li Rojhilatê Asyayê û Rojhilata Navîn de ev bûyer zêdetir diqewim e. Îsal di meha Sîbatê de, Hindistanê ji raya giştî re eşkere kir ku ewan bi zagonekî nû ji bo parastina jinan û li hember derketina kûştinên ji ber "namûs"ê amade dikin. Herweha piştî vê zagonê, kujerên jinan bi cezeyên giran bên. **NETEWE**

## Kurdekê Hevjîna xwe ya 51 salî kuşt û piştre jî dawî bi jiyana xwe anî



Li Kayapınar a Diyarbekirê, karkerê malniş bi navê Remezan Balsak, jina xwe ya 51 salî bi navê Hacer Balsak kuşt û piştre bi heman tifingê xwe jî kuşt.

Bûyer li Semta Gaziler a Kayapınarê qewimî. Tê gotin ku Remezan Balsak bi hevjîna xwe Hacer Balsak re kete gengeşiyê û Hacer Balsak derket şaneşîna xaniyê û ji cîranan alîkarî xwest. Lewma Remezan Balsak bi tifingê jina xwe kuşt. Piştre jî bi heman tifingê xwe kuşt.

Termên Balsakan rakirin Morgan Nexweşxaneya Lêkolîn û Perwerdehiya Diyarbekirê.

**Avesta**

# ÇANDYARÎ



ADAR JIYA
adarjiyan@mynet.com

Dîroka mirovahiyê, dîroka hilberiya çandê ye. Ango çand bi xwe hilberî ye. Û hilberiya çandê jî nirxên civakî, dîrokî û neteweyî tîne zimên.

Çand, parçeyek ji jiyana mirov e. Tu civak û mirov nîn e ku çanda wî/ê tune be. Her civakek li ser xaka û erdnigariya ku tê de dîjî, çandekê resen û xweser diafirîne. Her xak û erdnîgariyek, dibe cih û warê çandekê. Her çand, huner û wêje jî bi xislet û taybetiyên xwe, ji yên din vediqetin.

Wekî tê zanîn her çandek, bi saya çalakî, lebatî û guharîneyên mirov û civakê yên ku li hemberî xwezayê hatine domandin, pêk hatiye. Ango, çand behre û berhemdariyên civakên dîrokî bi xwe ne. Di xwezaya me ya ku gelek giyanewerên jîndar di xwe de dihewîne de, heyînê ku bêalav û bênavgîn dijî tenê mirov e. Tu mirov jî nikare bê alav û amûrên jiyanê, çand, ziman û hebûna xwe bidomîne. Çimkî mirov, pêşî bi çandê û paşê jî bi siruştê ve girêdayî ye. Û ew, li nik çandê ji nû ve xwe jî diafirîne. Heyînê ku li hember xwezaya hov û har radiweste û bi awayekî din li hember xwezayê şerekî bênavber dikudîne, dîsa tenê mirov e. Belê heke ku mirov bêhejmar alavên hilberiyê bidest nexistiba, fikr û ramana wî/ê ewqasî pêş ve nediçû û heta dê ew ji lawir û ajalên har û hov re bibûna êm. Herwisa heke ku mirov li dijî xwezayê şerekî bêhempa li dar nexistiba, şarezayî û şaristanî nedigihîşt vê radeyê û dê mirovayî jî wekî civaka hoveber (seretayî) ya komînal jiyana xwe bi rengekî ajalî bidomanda. Belê mirov, radestî xwezaya hovnak nebû; berevajî wê, hewl da ku xwezayê radest bigire û wê bixe bin suxreya mirovahiyê. Bi rastî biser ket û gihîşt vê radeyê.

Ji bo ku jiyana xwe bidomînin, hemû giyanber ji xwezayê sûd werdigirin. Ji bo gel û neteweyên dinê, hebûna xwe bidomînin, divê pêşî alavên hilberiyê li gorî berjewendiyên xwe û di suxreya xwe de bidin xebitandin. Her wiha divê her gel û netewe li gorî merc û derfetên demê tev bigerin û ji hêla aborî û teknolojiyê ve serketî û pêşketî bin. Heke na, dê ew gel di nava çanda çend hêzên serdest û desthilatdariya dinê de bimehin û hêdî hêdî ji qada jiyanê vekişin û tune bibin. Îro cîhana sedest dixwaze li ser navê globalîzmê çandek împeryalîst bi gelên cîhanê bide pejirandin. Bi rastî navê vê yekê îperyalîzma çandê ye. Li hember vê xetereyê divê çi bê kirin ? An jî dê gel dikaribin xwe bi çi awayî biparêzin û hebûna xwe bidomînin ?

Pêşî, divê bête zanîn ku çand, huner û wêjeya gelan li ser welatekî azad û serbixwe dikare bê parastin û perisandin. Çimkî welat û xaka azad, wekî asêgeha çanda gel û hîmê huner û wêjeya neteweyî ye. Her wisa welat jî bi nirx û hêjahiyên neteweyî tê naskirin û parastin. Civak û netewe, ji pêkerên çandî, hunerî, wêjeyî û hwd. pêk tên. Belê çand, huner û wêjeya gelên bindest û welatên mêtingeh, qels û lewaz e; heta mirov dikare bibêje winda an jî nîvmirî ye. Gel û neteweyên ku welatê wan dibin lingê dagirkeran de dieçiqe, ne pêkan e mirov dikaribe behsa çand, huner û wêjeya wan pêşketî bike. Êdî bi parvekirina welatê wan re çand û hunera wan jî ji aliyê dagirkeran ve hatiye/tê bişavtin, lewitandin û tarûmarkirin.

Gelê kurd jî yek ji wan gelan e ku bi hezaran sal e, çand, huner û wêjeya wî, tevlî welatê wî ji aliyê hêzên dagirker, êrîşkar û gunehkar ve hatiye talankirin û dagirkirin. Îcar ev gelê han dê çiqasî hay ji çand, huner û wêjeya xwe ya resen hebe ku bikaribe lê xwedî derbikeve ? Gelê ku li sar xaka xwe, wekî koçber, penaber û biyaniyan bijî û çand, huner û wêjeya wî bi zagonên zingarî û qanûnên paşverû hatibe qedexekirin û manîkirin dê çilo bikaribe xwe bi cîhana hemdem û mirovahiya dinê bide nasandin ?

Dergûşa şaristaniya gelan, navend û çavkaniya çanda civakên dîrokî, xaka Mezopotamyayê ye. Gelê kurd jî, yek ji gelê Mezopotamyayê û Rojhilata Navîn ê herî qedîm û kevnare ye. Her wiha xwediyê çandeke dewlemend, erdnîgariyeke adan û welatekî bi xêr û bêr e. Gava ku Mezopotmaya an jî Mezrabotan tê gotin, çand, huner û dîrok, belê nemaze çand, huner û dîroka gelê kurd tê bîra mirov. Ew xaka adan, di navbera Dîcle û Feratê de cih digire. Bi xwîn û xwêdana bav û bapîrên kurdan hatiye stirandin û bi çand û hunera wan hatiye neqişandin. Bêşik li ser vê xakê gelek şaristanî û çanda gelên din jî zîl daye. Wekî asûrî, ermenî, ereb û peyre tirk hwd. jî li ser vê xakê jiyane û şaristaniyên dîrokî afirandine. Belê îro ro jiyan, li ser vê xakê li wan hatiye herimandin û heramkirin. Çand, huner û wêjeya wan hatiye bişavtin; welatê wan hatiye dagirkirin û nirx û hêjahiyên wan ên arîşî û daringî hatine talankirin.

Bernard Lewis jî dibêje:

"Venêrandina neteweyekê, bi qedexekirina zimanê wê; belê tunekirina wê jî her gav bi tunekirina çand û dîroka wê pêkan dibe."

Kaniya Helbestan

## Bê Dayîk



**Kajîn Urmiye**

Derdê dilê min zor in,
hêsir çavan dibarin
Birînên dilê min pir kûr in,
keyf û xweşî ji min dûr in
Tev te ez şund û şor im,
bê te ez gula şor im
Bê te ez hişkedar im,
ev te ez gula sor im
Ji felekê gazin im,
wek çiyayê demirim
Ez pola me namirim,
ji jîna xwe vêzar im
Ji felekê dilreş im,
ez tola te dixwezim
Tola te ew e bimrim,
şev û rojan nekalim
Bê te ez her dinalim,
evarê wan çolan im
Deşt û mêrgan digerim,
cî warên te bibînim
Ez ji dinyayê têr im,
bê heval û hogir im
Giştî kesan direvim,
bê evîn û viyan im

Xwedayo bêje çi bikim?,
dixwazim per bikêşim
Ji nav xweliyê herim,
ez ruhekî serkêş im
Ez ewrê bê baran im,
car car bo te digurim
Bo mirna te şemal im,
gav û deman dihelim
Bê te gulek bê bîhn im,
bê te kevek bê deng im
Ez dibêjim evîndar im,
bi evîna te geş im

**Netewe**

# Şiroveya Gotinên Pêşiyan

Beşa 13



Çiya Mazî

Ev jî we ya jor, divêt mirov bipirse, ka ji kû hatiye û mebest jê çi ye? Dibe ku bi vî awayî be jî: "Ew li dij me derdikevin, ne ku zirarek gihîştiye malê wan yan tiştekî wisa, mesele tenê dexsî û hesûdî ye". Lê ev texmîn e, ez rastiya wê nizanim. (M. Reşîd)

**1.** "Kesê çavbirçî, kerê bi bar ve dadibeliîne" rastiya vê jî wiha ye û biwêj e: "Weke gurê çavbirçî, kerê tevî bar dadibelîîne". (Q.Dêrsilavî)

"Wekî berê jî me gotibû bi hin guhertina forman, biwêjek dikare bibe gotineke pêşiyan û bi demê re wiha bûye. Wekî vê gotinê jî, dema ku mirov peyva 'kesî' bikar neyne û 'weke' bikar bîne, dibe biwêj, ji ber ku mirov rasterast ji yekî re dibêje. Lê heke wekî peyva 'kesê' hebe tevahîbûn çêdibe û darizandin, pendîbûn û hukum ji her kesî re çêdibe. Dema tenê " kerê bi bar dadibeliîne" be. dibe biwêj. ( Ç.Mazî)"

Peyva "dadibeliîne" peyveke erebî ye, kurdiya wê "dadiqurtîne" ye. Li ba me biwêjeke mîna vê heye. Dibêjin: "Hêştir tev hawid dadiqurtîne". Ev ji kesekî re tê gotin, ku polperest û diravperest be, tenê kelk û mesleheta xwe dizane, hema çi keys û fersend ketê, her tiştî ji xwe re dibe, hesabê kesekî din nake. Ez ji biwêja jor jî vê maneyê fêhm dikim. (M. Reşîd)

**2.** "*Wextê bira bira be, jina birê mehr nake*" çi têkiliya vê û gotina pêşiya bi hev heye. Bi texmîna min vê gotinê Mahsum Qirmizîgul, di 1999 de derxistiye (qerfe) (Q.Dêrsilavî)

*" li gor ku min lêkolîn kiriye û bi baweriya min ev ji berê de heye. Wekî dibêje 'bira xêra bira bixwaze, jina wî mehr nake'. Lê dibe ku hinekî hetibe guhertin. (Ç.Mazî)"*

Dîtina min jî li vir wek ya Ç. Mazî ye. (M. Reşîd).

**3.** "*Esil winda nabe*". Tu têkiliya vê gotinê bi pêşiya re nîn e. (Q.Dêrsilavî)

*"Bi baweriya min wekî 'esalet winda nabe' ye,. Esaletî jî di demên berê de bandorek wê hebû, ji ber wê yekê jî û ji ber ku hukum jî heye gotineke pêşiyan e, (minak dibêje 'ev tiş wiha nabe'). Herwiha ji bo "esil" jî bê gotin dihere ser heman wateyê. Esalet bi xwe jî ji bingehê tê ji "esas" tê, "esas" jî nêzî "esil" e ango "jêderk" e. ( Ç.Mazî) "*

Ez jî wek Ç. Mazî "esîl û fesil" jê fêhm dikim. Ev ji berê de heye. Gava kesek tiştekî xirab û nebaş dike, dibêjin "Ew bê esil û fesil e" yan jî "Şîrê wî ne paqij e". (M. Reşîd).

4. "*Zêr zingar nabe*" Rastiya wê "Zêr di ku keve, zingar nabe" ye. (Q. Dêrsilavî)

*Zêr zingar nagire" bes e. Lê bi guherandina formê an li hin deveran bûye "zêr di ku keve zingar nagire" ev jî tiştekî xwezayî ye.. (Ç.Mazî)*

Gelo ev gotinên pêşiyan û ev biwêjên ku em li ser diaxivin li ser ti keviran hatine nivîsandin yan jî di ti belgeyên dîrokî de hatine tomarkirin? Heya ku em bêjin "rastiya xwe ev e û ne ya din e?". Ji ber ku ew bi zimanê devkî ji bav û kalan gihane me, tiştekî gelek siruştî ye, ku formê wan jî bi bihurîna demên dîrokî hatibe guhertin. Gava em dibêjin:

a) Zêr zingar nagire

Zêr e, zingar nagire Wek zêr e, zingar nagire Kêm an zêde mîna hev in. Kîjan ji van di pirtûkan de hat tomarkirin, ewê cihê xwe bigire. Ev jî niha berpirsiyariya Ç. Mazî ye.

Bi dîtina min, di vî warî de naverok grîng e. Em ji van formên (a), (b) û (c) yekî wergirin û derbas bibin. Tiştê din yê girîng ew e, ku gava em "gotineke pêşiyan" yan jî biwêjekê, ku bi zaravayê herêmeke din hatiye gotin, dibihîsin û em nizanin ji sedî sed mebest jê çi ye, ji ber ku ew bi me ne nas e, em nebêjin "Ev ne gotina pêşiyên kurdan e", yan jî "Ev ya gelekî din e", yan jî "Tiştekî wisa nîne". Dîtineke wisa, dîtineke gelek teng e û ne zanistî ye. Em dizanin, ku li welatê me (li hemû welatên din jî wisa ye) gelek zarava û devokên cûda hene. Tiştekî gelek siruştî ye, ku li her herêmekê gotineke pêşiyan formekî din standibe. Yan jî li her herêmekê, li gor rewş û serboriya wê herêmê, gotineke pêşiyan li wir peyda bûbe, ku li herêmeke din tunebe. Hên ji vê bêtir, dibe ku dîtin û helwesta xelkê her herêmekê li tiştekî tayabetî, yan jî di rewşeke taybetî de, ne mîna hev be. Ezê li vir wek nimûne bêjim:

Kew, wek balineyekî bi nav û deng li seranserê Kurdistanê tê naskirin. Nêçîra kewan ji berê de heye. Gelek nêçîrvan bi taybetî diçin nêçîra vî teyrê xweşik. Gava ew difire, mîl û rast difire, basik li hev naxe. Ji lew re, nêçirvanê pispor divêt tenê li banî tivinga xwe berde kew. Gava kesek tivinga xwe li erdê berde ser kew, nêçirvanên pispor tirq û tinaziyên xwe pê dikin. Lê bi bihurîna heyamên dîrokî rewşeke din jî di nêçîrvaniya kewan de peyda bûye. Hin nêçîrvan pêşî diçin bi davê mariyekê (kewa mê) digirin, wê dixin rekelekê (qefesekê) û li mal xwedî dikin. Gava ew diçin nêçîrê, kewa mê di rekelê de bi xwe re dibin û li cihekî datînin. Kewa mê destpê dike û dixwîne. Bi awazên wê re kewên nêr ji çiya û beyaran tên nêzîkahiya wê. Nêçîrvan jî tivinga xwe berdide wan û wan dikuje. Vê rewşa xapînok, baweriyek li ba gelek kurdan çêkiriye, ku kew xinizê (xayînê) cinsê xwe ye. Ji lew re, li wan herêman kew ji ber vê rewşê nîşan û sembolê îxanetê ye. Li herêma me jî ev têgihîştin heye. Lê belê xuyaye, ku li her herêmekê ev têgihîştin ne wisa ye. Gava em îro li malperên înternêtê temaşe dikin, em dibînin, ku pir saziyên kurdan, heya hin rêxistinên siyasî jî kew ji xwe re kirine sembol. Bi têgihîştina pêşîn, ev kesên han dibêjin "Em xayînên qewmê xwe ne". Lê gelo ev rast e? Na xêr. Bi baweriya wan, kew li Kurdistanê balineyekî bi nav û deng e, ew gelek xweşik e, ji lew re jî, wan ew ji xwe re kiriye nîşan û sembol. Gelo heke ew bizanibin, li ba gelek kurdan kew wek sembolê îxanetê tê fêhmkirin, ewê kew ji xwe re bikin sembol? Na. Wisa xuyadike, ku li ba wan ev têgihîştin qet nîne.

Min çima ev çîroka (li gor mijara me dûr û dirêj ) li vir nivîsand?. Min xwest ez bidin xuyakirin, ku ne merc e, dîtinên kurdan yên civakî li her herêmeke Kurdistanê mîna hev bin. Nê jî awayê bilêvkirin û gotina wan ji sedî sed mîna hev e. Min carekê di kovara BÎRNEBÛN (kovareke ji alî Kurdên Anatoliya navîn tê weşandin) de hin gotinên pêşiyan xwendin û ez gelek lê matmayî mam. Ew hemû li ba me jî hene, lê bi awayekî din tên gotin. Ji sedî sed, gelek kes jî dê wan hemiyan nasbike, lê dê ewê wan bi awayekî sêhem bêje, ku ne wek ya wan û belkî ne wek ya me be jî. Tiştê girîng di vir de ew e, ku ev gotinên pêşiyan yan jî biwêj bi zimanekî petî, resen û xweşik bên tomarkirin. Tiştê ku ez jê nerihet bûm jî ew bû, ne ku di kovara Bîrnebûn de bi awayekî din hatibûn nivîsandin, na xêr, ji ber ku ew ji aliyê ziman ve, çewt û li gor qeydên vekît û rastnivîs ne rast hatibûn nivîsandin. Bi dîtina min, ev ji pir tiştên din girîngtir e. Divêt em wan bi zimanekî rast û durist binivîsînin. (M.Reşîd)

**4.** "*Gul bê strî nabin*" a Tirka ye, Bi Kurdî "*Goşt bê hestî na be*" ye. (Q.Dêrsilavî)

*Di Kurdî de jî heye û dibe ku Tirkan ji çanda Kurdî girtibin. Ji ber ku gul jî li nava kurdan heye û striyên wan jî. Eşq jî heye, kêf jî heye û dijwariyên wan jî pir in. mirov nikare tiştekî pir qutebirî ji bo neteweya vê gotinê bibêje.(Ç.Mazî)*

**5.** *"Kesê xebatkar, nanê xwe ji kevir dertîne'* rastiya vê gotinê ev e: "*Mêrê çê nanê xwe ji kevir derdixe". (Q.Dêrsilavî)*

*Li gor rewşa civakê jî forma gotinan hatiye guhertin. Mînak; berê xebatkar tunebûn an kêm bûn. Lê ji ber ku aniha xebatkarî pir e, hetiye wergerandin. Gotinên pêşiyan nayê wê wateyê ku teqez pêşiyan gotibin an di demên berê de hatibin gotin . Di her demê de, li gor rewşa civak û tevgeran hatine afırandin û hê jî têne afirandin. (Ç. Mazî)"*

**6.** *"Devê elimî viran, nasekine."* Dev na elime vira, Ji xwe ne orjînalîta peyvê têde sor dike. Me di şibhê vê gotinê de gotineke wuha bihîstî ye: "qûna ku elimî tira, ra lê nabe" di derheqê viran de jî pir hene. (Q.Dêrsilavî

*"Li her herêmekê dibe ku bi awayekî hatibe gotin. Di herdu gotinên brêz Dêrsilavî dibêje, wate ne yek in. ya yekem ji bo derewan tê gotin û dev bi xwe hîn dibe. Lê ya duyem ji bo tirekiyê an qelpiyê û tiştekî dî tê gotin û ew jî ji bo derewan carinan tê gotin. ( ç.mazî)"*

**7.** "*Ker ker e, nakeve nav ava kûr de*" Gelo mirov kare çi zanistî û şîretê ji vê gotinê derxe? Ma kê xwe xistiye ava kûr? Çi gotineke rijî. Ez bawerim forma vê gotinê hatiye hilweşandin. Û ji ber wê ye, ku peyveke sosret derketiye holê. Gelo gotin ne werê be? "Kerê ku ne elimîbe delav, zu bi zu lê nade" (Q.Dêrsilavî)

"Herdû gotin jî heman wateyê derdixin, lê ya pêşî bi hêrs hatiye gotin, ya dawî rast e. Ez ne bawerim kesî guherandibe, di nava gel de dema hêrsbûniyê tê gotin. Peyva "av" jî dibe ku ne av be. Ji bo xeletiyên mirovan ku di jiyanê de dikin re, tê gotin" (Ç.Mazî)

**8.** "*Roj nayê vemirandin*" Ev ne gotina pêşiyan e. Duruşm e ye (sologan e) . Ka em tev bi hevre li ser hûr bibin û di nava hevokekê de bikarbînin. Na ez bawerim, ku kes jî nikare pêk bîne. (Q.Dêrsilavî)

*Dibe ku aniha bi mirovan hinekî duruşmeyî xuya bibe. Ji ber ku ev gotin nû derketiye. Lê ez bawer dikim ku 20 salên din dibe ku ev gotin bibe gotineke pêşiyan. Ji xwe ez di serî de jî dibêjim ku gotinên pêşiyan bi demê re têne hilbijartin. Heke ev têkeve serê mirovan û cihê xwe bigire, dê bibe gotineke pêşiyan. Ma gelo pêşî kî nin? Ma ne ku yên 30 Sal 40 Sal an sed Sal berî me jiyane. Îjar heke aniha peyveke xweş bê gotin ji xwe wê aniha nivîskarê wê diyar be û nabe gotina pêşiyan . lê 50 Salên din û nivîskarê wê ji bîr bibe wê bibe gotineke pêşiyan. Brêz dêrsilavî rast dibêje. Ji*

agiri

Duheftînameya siyasî, civakî, çandî û hunerî
Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê diweşîne

http://www.kurdistanmedia.com/kurmanci/index.php
Navenda bingehîn ya xebata Agirî li Kurdistanê ye.
Navnîşana derveyî welat:
AFK B.P. 102- 75623 Paris CEDEX 13 –FRANCE

E - Mail: agiri2003@hotmail.com
agiri2003@gmail.com, rojnamaagiri@gmail.com






Albûma Wêneyên Newroza 2710 Kurdî Li Koyê

Efûya Navnetewî:

## "YE'ê Alavên Îşkenceyê Difroşe"

Efûya Navnetewî ragihand ku Yekêtiya Ewropayê li şûna demokrasiyê, îşkencê bazar dike. Rêxistina Efûyê ya Navnetweyî di rapora xwe ya dawiyê de YE'yê bi firotina alavên îşkeceyê sûcdar kir. Rêxistina han diyar dike ku welatên YE'yê ji valahiyên makezagonê fêdê werdigrin û ew alavên îşkenceyê ku



hatine qedexekirin, çêdikin û difroşin.
Li gor rapora vê rexistinê YE'ê gelek alavên îşkenceyê difroşe wan welatan ku siyaseta îşkencê têde zêde tê meşandin. Her wiha di rapora rêxistina han de hatiye diyar kirin ku herî zêde jî Îspanya û Îtalya wan alavan difroşin.
Her wiha di raporê de tê gotin ku Almanya û Komara Çek jî gelek alavên îşkenceyê difroşin.

## Rojnameya Clognlif a Almanî Bi Kurdî Diweşîne

Rojnameya Clognlife bo yekem car di dîroka rojnamegeriya Almanyayê de di gel zimanê Almanî bi zimanê kurdî jî diweşîne û pencereyekê bi rûy kurdan vedike.
Rojnameya Clognlife ji niha ve weşana kurdî ya xwe dest pê kiriye û dixwaze di roja Newrozê de di gel zimanê Almanî, mijarên



xwe bi kurdî jî biweşîne. Vê rojnameyê manşeta xwe bi wêneyeke newrozê bi alaya Kurdistanê xemilandî, terxan kiriye û di vî warî de nivîsandiye, "Hejmareke zaf ji xelkê Kolnê van rojane, di xwe amadekirinê de ne bo cenjnê Nexêr, merem cejna Pak, dubare zîndîbûna Mesîh nîne, cejna Newrozê ye".
Clognlife rojnameyeke înternetî ya Almanî ye ku beşeke taybet bo zimanê kurdî terxan kiriye, ji Newroza 2710'an vir de, kurdî û Almanî wekî du zimanê yek malbata zimanî, zanyariyan ji hevdu werdigrin.
**AKnews**

## Zilamê Herî Kin Ê Cîhanê Mir

He Pingping ê çînî ku bi bejna xwe ya 75 santîmî wekî 'zilamê herî kin ê cîhanê' ket pirtûka rekoran a bi navê Guinnessê, di 21 saliya xwe de li Romayê mir.
Li gor daxuyaniya navenda pirtûka rekoran a Guinnessê, He Pingping di dema bernamayeke televîzyonê de ji nişke ve êşek ketiye ser singê wî û jiyana xwe ji dest daye.
He Pingping ji ber nexweşiyeke hestiyan mezin nedibû û bejna wî 74.61 santim bû.



Midûrê Pirtûka Rekoran a Guinessê Craig Glenday wisa got: "Di gel ku mirovekî wisa biçûk bû jî tesîreke wî ya mezin li ser cîhanê hebû."